R: 3

## Çima Seîd Murtezewî nehat cezakirin?



R: 5

## Hilkêş - dakêşa pêwendiyên navbera Îran – DYA



R: 7

## Êrîşa ser Îranê, senaryoya Pintagonê



R: 8

## Roja Cîhanî a kedkaran û rewşa wan di Îranê de




Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

# Agirî

Hejmar: 182
5'ê Gulana 2012'an
Buha: 150 Tûmen


### Konseya Ewlekar: Îran hevkariya ajansê bike

Pênc endamên konseya Ewlekar a NY, roja Pêncşemî, 3'ê di daxuyaniyekê de daxwaz ji rejîma Îranê kirin ku li dor çareseriya pirsa navikî a xwe hevkariya ajansa navnetewî a Vejena navikî bike. Herweha nîgeraniya xwe jî anîn ziman ku Îran li piratîk de pabend nine bi sozên xwe. Eva jî li halekê de ye ku qirare çend rojên din got û bêjn navikî li navbera girûpa 5+1 û Îranê de birêve biçin.


Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û giştî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî


# Kolberên kurd goriyên bêberevan



**Hêzên rejîma Îranê gellek bêrehmane her roj ciwanên Kurd dikine armanca gulleyan û canê wan jê distînin.**

Li gorî zanyariyan hêzên rejîma Îranê roja pêncşemiyê 3'ê Gulanê dîsan kasibkarên Kurd dane ber gulleyan û li encam de li herêma Alana Serdeştê 4 kasibkarên Kurd kuştin.

Her piştî vê cinayetê di navbera hêzên rejîmê de jî şer û pevçûn pêk hat ku 4 kes ji hêzên rejîmê li encama wan pevşûnan de hatine kuştin û 3 kes jî bi tundî birîndar bûne.

Li gorî nûçeyeke Kurdpayê, tenê li wan 45 rojên borî de aliyê kêm 8 kasibkarên Kurd bi teqekirina rasterast a hêzên rejîma Îranê canê xwe ji dest dane. Her li vê derheqê de kempîna navnetewî a Mafê mirovan di raporekê de eşkere kir ku li yeksala borî de 74 kolberên kurd bi destê hêzên rejîma Îranê hatine kuştin.


Zanyariyên berfirehtir di vê derheqê de li rûpela 7'ê de bixwînin.


## Artêşa Sûriyê tawanên şer encam dane


R: 2




## Erebistanê derheq her sê giravan, rijd Îran rexne kir


R: 2




## Sergotar

## Hikûmetek ku fesad jê dibare

Selîm Zencîrî

Mijara herî germ û gurr li qada siyasî a Îranê û rikeberiyên navxweyî de ku van rojane em berdewam dibihîzin, basa dizî, talan û gendeliyên bi mîlyardî ên berpirsiyarên rejîma Îranê ye. Tawan û pîşeya ku beşek sîstematîk e ji siyaseta fermî a rejîmê û xîmê wê jî li ser wê esasê hatiye avakirin.

Xala esasî ku bûye dînamîzma eşkerebûn û rûbûna destê talançiyan, ne edalet û şopa yasayê ye, belkî dijberî û hevrikiyên band û taqimên desthilatdar e ku li ser parvekirina samana giştî a xelkê û para zêdetir wekî guran berbûne canê hev û hev û din bi dizî û pêpeskirina yasayê tawanbar dikin. Dewsa talan û diziyan jî derdixe ku her ji moreyên herî biçûk heya serfermande û serkarwanê dizan anku Xamineyî bihevre şirîk in, û zêdeyî sê dehsalan in ku bi xwîna xelkê û samana wan dijîn.

Eva ku nîgeranî û tirsa Xamineyî û berpisan zêdetir kiriye û hawar dikin ku zêde pêre neçin û wan faylan perdepoş bikin, riswa bûna zêdetire wan e li nav xelkê Îranê. Lê êdî nema ew serdem, niha naverok û kakila esliye wan ji her demekê pitir derketiye û rewatiya ku îdeaya wê dikin, bûye bulqa ser avê. Ji ber ku ew diziyane li demekê de eşkere dibin ku piraniya xelkê Îranê li bin hêla hejariyê de dijîn. Bêkarî, helawsan, giranî û ...hwd gihane kopika xwe û fesad mîna baranê ji her aliyek hikûmetê dibare û xelik tûşî nehametiyê kirine, lê ew fesad niha mîna kirmê darê berbûye canê dara fesada hikûmeta îslamî û ne ji derve, belkî li navxwe de li halê rizîn û hiloşiyanê ye.

# Peyama pîrozbahiya Sekreterê Giştî yê PDK Îranê bi boneya 114'mîn salvegera rojnamevaniya Kurdî

**Deqa peyama birêz Hicrî bi vî awayî ye:**

Bi boneya 114'mîn salvegera belavbûna yekemîn rojnameya Kurdî, ez pîrozbahiyek gerim pêşkêşî hemû rojnamevanên derwest ên Kurdistanê û hogirên rojname û rojnamexwînan dikim.

Bi taybet di vê rojê de yad û bîranîna gişt wan pênûsên wêrek û azad dikim ku di hêla hizra azad û gihandina zanyariyan ku beşek neveqetiyayî ji demokrasiyê ye, zehmet kişandine û niha jî ji şopandina wê riyê berdewam in. Rêz û pêzanîn ji bo gişt wan rojnamevanan bi taybetî rojnamevanên Kurd li Kurdistana Îranê ku di pêxema cî bi cîkirina erkên rojnamegeriyê de hurmeta pênûsên xwe parastine û serê xwe ji bo rejîma dijî azadî a Komara Îslamî neçemandine û bi wê tometê ketine ber heps û îşkenceyan.

**PDK Îranê**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**

22'ê Nîsana 2012'an
3'ê Banemerra 1391'



## Erebistanê derheq her sê giravan, Îran bi tundî rexne kir

**Di doma nakokiya di navbera Îran û welatên Erebî de, Şazade Nayif Bin Ebdilezîz hişdarî da ku hikûmeta Riyazê gefa li dijî welatên Erebî ên derdora kendavê qebûl nake.**

Şazade Nayif di civîna Wezîrên Navxwe Ên Welatên endam di Şêvira Hevkariya Kendavê, li Riyazê de got: "Her cur xisargehandin bi welatên Erebî derbelêdan li me ye jî".

## Artêşa Sûriyê tawanên şer encam dane

**Saziya Çavdêr a mafê mirovan, artêşa Sûriyê bi encamdana tawanên şer di heyamê pêş lihevhatina agirbesta 12'ê Avrîla îsal tawanbar kir.**

Vê saziyê bona selimandina rastiya wan tawanan, di rapora xwe de bas ji îdamên bê dadgehî kirin, herifandina malên xelkê, îdama zarokan û desteser kirin û îşkence dana xelkê bê dedgehî kirin kiriye.

**Partiyek nû ya îslamî ava dibe**

## Li Bakurê Kurdistanê hewldana avakirina partiyeke îslamî

**Li Bakurê Kurdistanê ev demek dirêj e ku hewldana partiyeke îslamî ya kurd tê kirin.**





Li ser hewldana avakirina weha partiyekê, Parêzer Sidqî Zîlan ragihandiye ku:"Em ne li dijî AKP û BDPê ne!"

Zîlan dibêje ew ê di meha Hezîranê de bi fermî partiya xwe ava bikin.

Sidqî Zîlan herweha zêde kiriye ku li Bakurê Kurdistanê tu partî tune ku nûnertiya kurdên îslamî bike û dê partiya wan hewl bide ku nûnertiya kurdên misilman bike.

Çavdêr li ser vê baweriyê ne ku li weha egerekê de ew partî dikare gelek dengên AKP'ê ku kurd in û bi sedema rol û hestê îslametiyê tevlî bûne, jê bistîne.

## Pîlana revandina balyozê Erebistanê hate pûçkirin

**Dezgehên ewlehiya Mîsrê sê kesên ser bi rejîma Îranê destbiser kirin, ku li cem wan belgeyek derbarê pîlana revandina balyozê Erebistana Seûdî hate dîtin.**



Şêvirmendê Hiqûqî yê balyozxaneya Erebistanê li bajarê Qahire eşkere kir ku, pîlana revandina balyoz û Nûnerê Erebistanê di Yekîtiya Ereb de hate pûçkirin ku ji aliyê girûpeke ser bi Îranê ve hatibû darêtin.

Cemaledîn Şêvirmendê Hiqûqî yê balyozxaneya Erebistanê li bajarê Qahire de got ku balyozxaneya Erebistanê û herweha Konsulgeriyên Erebistanê li bajarên Eskenderiye û Soêzê, seba gefên ewlehiyê ên micid û nîgeranî ji terora balyozê Erebistanê hatine daxistin.

## Biskên jinan dîsan bi hezaran polîsên jin di Îranê de xiste tevgerê

**Zêdetir ji 70 hezar polîsên jin bona çavdêrîkirina hicaba jinan, rijiyan ser kolanên Tehran û bajarên din yên Îranê.**

Li gorî nûçeya Şehrzad newse, ew polîs ku bi polîsên exlaq hatine naskirin, bi tenê bi agehdarî û gefan razî nabin, û di hember jinên ku ber xwe didin û guh nadin agehdariyên wan, di gel lêdan û destdrêjiyan berbirû dibin.

## Obama dorpêçên zêdetir li dijî piştevanên rejîma Îran û Sûriyê pesend kir

**Serkomarê Amerîkayê di biryarek taybetî de deshilata Wezareta Xeznedariyê Zêde kir da ku bikare dorpêçên ducarî li dijî wan sazî û kesayetiyan zêde bikin ku bûne arîşe di hember birêveçûna tehrîmên bi dijî Îran û Sûriyê.**

Di biryara Obama de hatiye ku Wezareta Xezanedariyê dikare hisab û darayiyên kesên ku peywendî di gel rejima Dîmeşq û Tehranê de hene bisekinîne, û herweha Wezareta Derve dikere dorpêçên peywendîdar bi vîza û hatûçûyan jî bi ser wan de bisepîne.

# Çima Seîd Murtezewî nehat cezakirin?



Luqman Mêhrfer

Seîd Murtezewî ku bi dozger Murtezewî tê naskirin, kesek niye ku bi tenê di cînayetên Qesabxaneya Kehrîzekê de rol lîstibe û cînayet kiribe. Di serdemê Serkomariya Xatemî de yek ji wan kesan bû ku di bêrehmiyê de bi navûdeng bû. Wê serdemê di givaşa ser nivîskar û xwedî pênûsan de destek bilind hebû. Lewra bi qatîlê çapemenî û ragehandinê dihat naskirin.

Piştî nearamiyên dewra dehem a serkomariyê û riswabûna cînayetên Kehrîzekê, Murtezewî ji berpirsatîya xwe hat dûrxistin. Di Sermaweza sala 1388'an de, heyetek taybet ji aliyê parlementoyê bo pêdeçûn bi keysa Kehrîzekê hat diyarîkirin , di encama lêkolîna heyetê de tometbarê sereke û kesê yêkem yê vê bûyerê, Seîd Murtezewî hat nasandin. Tawanên navbirî beşdarî di tawana kuştin, binpêkirina mafên hemwelatiyan, şikandina keramet û kesatiya mirovî ya însanan bûn. Piştî vê ku cînayeta han di asta derve û hundur de bi avayek berfireh deng we de, Elî Xamineyî Rêberê Komara Îslamê neçar ma ku, bi hêceta îstandard nebûna pîvanên girtîgehan, biryara daxistina Kehrîzekê da. Eva ku di vê navberê de balkêş û cihê lêfikirînê ye biryarên rêber û serkomar in, çunkî rêber biryar dide ku keysa Kehrîzekê bihê daxistin û lêkolîn jî ji Murtezewî nehê kirin, hewdem Ehmedî Nejad jî piştî dûrxistin li dozgeriyê, navbirî weke nûnerê taybet ê xwe û Serokê Nawenda Xebat li dijî kelûpelên Qedexe û erz diyarî kir. Weha tê xuyakirin ku xelata Murtezewî li gorî cînayetên wî kêm be, lewra digel ŞêxolÎslamê Wezîrê Te'awon, Kar û Asayîş (Rêfah) a Civakî, weke birêveberiya giştî ya Te'mîna Civakî hat diyarîkirin. Piştî wergirtina berpirsatiya han ji aliyê Murtezewî û dest bikar bûna wî, pêlek berfireh ji nerazîbûnan di hember cînayetkar Murtezewî û helwêst û biryarên karbidestên rejîmê serî hilda. Di vê navberê de duberekî ket navbera parlemênto û deshilata cîbcîkirinê de, ku ev jî bi hizra min xapandinek din e, da ku bikarin heya heyemekê xelkê pê mijûl bikin û arîşeya sereke di hizra giştî de nehêlin, jiberku parlemêntoyê pêşdetir heyeta taybet bi lêkolîn ji dosiyeya Kehrîzekê ava kiribû. Piştî ku heyeta diyarîkirî rapora encamên lêkolînên xwe pêşkêş kirin, Murtezewî bi tawanbarê sereke û kesê rêza yekem ya vê cînayetê dan nasîn. Di cihê vê de ku bi awayek micit û dadperwerane tevbigere, bêdengî ji dosiyê kirin. Piştî vê ku nehat cezakirin bigre destxweşî jî jê hat kirin û hat xelat kirin. Bo selimandina vê rastiyê emê îşareyê bi çend xalan bikin.



Raste ji berpirsatiya dozgeriyê dûr xistin, lê ji aliyê Rêber vê tê azadkirin û biryara daxistina keysa Kehrîzek û qedexekirina lêkolînan hat dan,di hember de ji aliyê serkomar ve jî weke nûnerê taybet ê xwe û Serokê Nawenda Xebat li dijî Kelûpelên Qedexe kirî û Erz ve hat destnîşankirin, Wezîrê Teawon, kar û rifah jî weke berpirsatiya Orgneke hestiyar jêre hat diyarî kirin. Nûnerên parlemêntoyê niha du mercan dixin pêşiya Wezîr de, yekem hekî Murtezewî bi xwe dest ji kar nekişand dibe bihê derxistin, û ya duyemîn ew e ku hekî xala yekem nehê cîbicî kirin, dibe Wezîr ji ser kar derxin, û bê rohnkirin ku çawan û bi çi meremekê ev berpirsatî pê hatiye dan, yan ku çima nehatiye derxistine? Dema ku rûyê rexneyan ji dezgehên Qezayî ye, Mohemed Mosediq Cêgirê Hiquqî û Qezayî yê Rêxistina Hêzên Çekdar, li ser encama dawîn a rewşa keysa Kehrîzekê weha dibêje; bi nêrîna me lêkolîn li ser keysa Kehrîzekê bidawî hatine, û ev keyse jî weke hemû keysên din, bi merema pêdeçonan dê bo dîvana bilind ya welat bêne şandin. Eva bû ku biryara herî dawî ji aliyê serdozgerê Tehranê ve hate eşkerekirin, û Seîd Murtezewî weke tawanbarê sereke û tawanbar hate nasîn.

Lê niha pirsyarek tê ber bas û ev jî ev e ku gelo piştî lêkolîn û eşkerekirina belgehan, Hedad, Heyderî Fer û Murtezewî yê bên cezakirin? Bersiv eşkere ye, nexêr, jiber ku kesatiyên han taybet ji aliyê serkirdên rejîmê ve bi merema cînayet û serkutê hatine perwerdekirin, kesên han kêm nînin ku destên wan bi xwîna azadixwaz û xebatkarên mafên medenî û nemaze xelkê bê guneh jî sor bûye, her yek ji wan di qonaxekê de derdikewin, bi fermana rêber jî radibin û ji aliyê wan ve tên piştevanîkirin.

Xelxalî di serdemê Xumeynî de Qesabxane ava kiribû û pêla mirina xortên Îranê bi giştî û Kurdistanê bi taybetî xiste kar, di dawiyê de got ku min her karek bi emr û fermana Îmam cîbicî kiriye !! ne bi fermana xwe. Her karek ku ji aliyê Hedad, Heyderî Fer, Êjeyî û Murtezewî ve hatibe kirin , erêkirin,û wajoya Elî Xamineyî li ser bûye, eger kesek mina Seîd Îmamî bi şêwazek ne rohn di girtîgehê de tê kuştin, gomana vê yekê heye ku bi destê wan hatibe kuştin, seba eşkere nebûna hemî remz û pîlan û wan cînayetan ku di bin siya wan de beşek hatine cîbicîkirin û beşek jî niha di qonaxa cîbicîkirinê de ne. Lewra qatilê Kehrîzekê Xamineyî ye na Hedad, Heyderî Fer û Murtezewî, ew amrazên cîbicîkirina qetl û cînayetan, ne biryarderên sereke.

# Îran û roja cîhanî a azadiya belavokan!



Dara Natiq

Roja 2'ê Mey, li ser pêşniyara rêkxistina Nûçegehanên bêsinûr û li ser biryara saziya cîhanî a UNSCO, weke roja cîhanî a azadiya belavokan hatiye binavkirin heya ku di vê rojê de li sertaserê cîhanê de, rêz ji xebat û tekoşîna tev rojnamevanan di biwarên cur bi cur de bê girtin.

Lê mixabin em îsal di demekê de hevdehemîn salvegera roja cîhanî a azadiya belavokan bi bîr tînin ku pêka raportên rêkxirawên cîhanî, rojnamevan, wêblagnivîs û çalakên warên rojnamevaniyê di Îrana bin siya deshilata biyom a rejîma Komara Îslamî de, li rewş û zirûfek bi tewahî emniyetî û daxistî û tevî dijwartirîn tepeserkirin, eşkence û darvekirinê re berbirûn.

Komara dijî azadiyê her di yekem roja bidestvegirtina deshilat û sepandina îradeya pawanxwazane a xwe bi ser gelên têniyê azadî û demokrasiyê di Îranê de, herterze azadiyeke raderbirîn û veşana belavokên azad di Îranê de qedexe kir û bi bihêzkirina navendên sîxorî û tepeserkar ên xwe, bi tundî berengarî rojnamevanan, wêblagnivîs û xebatkarên warê rojnamevanî û ...hwd dibûn û ev pêvajo niha jî bi awayên cur bi cur û sîstematîk didome. Bi terzek ku tenê di du salên borî de, zêdetir ji 150 rojnamevan hatine biçavkirin û heya niha jî piraniya wan her di hepsîxanan de ne, û serbarê eşkence û lêdana wan, bi cezayên giran û demdirêj re hatne mehkûm kirin. Qasî zêdetir ji 200 rojnamevan bi hegera nebûna ewlehiya canî bi neçar ber bi welatên biyanî ve koç kirine.

Qasî 40 rojname û belavok bi hincetên cur bi cur ji aliyê rejîmê ve hatine daxistin. Zext û givaş roj bi roj bo ser xebatkarên warê çapemenî û rojnamegeriyê di zêdebûne de ye. Zêdetir ji du salan e ku "Civata Sivîl a Rojnamevanên Îranî" weke êvirgeh û pêgeha cihê hêvî û baweriya rojnamevanan, deriyê vê bi rûyê zêdetir ji 4 hezar endamên wê hatiye pilomp kirin û rewşek dijwar a ewlehî û polîsî bi ser de hakime. Siyaseta sansor, parazêt û fîlterkirina her terze alav û teknolojiyek, nemaze mahware û înternet û ....hwd, ku dibe hegera veguhastina zaniyarî û jêhelbirina astê hişyarî û têgehîştina civakê, bi avayek ektîv û berdewam ji aliyê rayedarên rejîme ve, pêrewî jê tê kirin û ev pêvajoye herwisa berdewam e.



Mixabin Îran ji rojnamevanan re bûye Gowantanamoyeke mezin. Her pêka rapora UNSCO'yê, Îran niha mezintrîn hepsîxaneya rojnamevanan di cîhanê de ye.

Lê serbarê tev hewlên tepeserkarane yên komara azadîkuj û cihgîrkirina rewş û zirûfek daxistî û emniyetî di welêt de, rojnamevan, xebatkarên warê belavokan di Îranê de, çi di nava zîndanan û çi li derveyî zîndanan, di warê bihêz kirina hizrên azad û gehandina zanyariyên dirust bi civakê, bi berdewamî dixebitin û niha jî li ser pîvana vê riya pîroz berdewam in.




# Neewlehiya civakî bajarê Bokanê hejand



Azad Kurdî

Destpêbûna diyardeya revandina zarokên dibistanan û xwendekarên kêmtemen li bajarê Bokan ê Rojhilatê Kurdistanê di meha Nîsanê de civaka Kurdistanê hejand û rojev bi xwe re mijûl kir.

Kuştina bêhtirî 10 zarokên Kurd li Bokanê Kurdistan hejand. Her kesî bala xwe da şirove û analîzkirina van cinayetan ku goriyên sereke jî zarokên Kurd bûn. Zarokên ku ji aliyê grûpek xerabkar û cinayetkar hat/tê meşandin û piştî ku zarokên Kurd direvînin, tecawûzê bi wan dikin û di dawî de jî difetisînin.

Grûpa han ne naskirî ye, lê pirranî di şev de gefê li hevwelatiyan dixwen. Çalakvanên mafê mirovan û hevwelatiyên sivîl bawer in ku grûpên bi vî awayî bê hevkarî, haydan û piştgirîkirina karbidestên dewletê nikarin kiryar wiha cinayetkarane bimeşînin. Ev bûyerên xemgîn û dilşewat bûn sedema ne ewlehiya civakî li Kurdistanê û bi taybet jî li bajarê Bokanê. Hezaran kes ji hevwelatiyên Bokanê di meşên aştiyane û sivîl de, ev cinayet şermezar kirin û hevdem rexne û nerazîbûnên xurt ji tevgerên sar û xemsariya hêzên Komara Îslamî nîşan dan.

Di welatekê de ku sîstema tekûz nebe û ewlekarî di civakê de tunebe, encamdana van kiryaran heta qasekê normal dixuye, lê di sîstemek wek Komara Îslamî de ku kontrolkirina hevwelatiyên sivîl di warê siyasî û civakî de pirr sîstematîk û tekûz rêve diçe, meşandina van kiryarên cinayetkarane li dijî zarokên bê guneh mirov şaşmayî dike. 33 sal in ku Kurdistan ji aliyê hêzên leşkerî, sîxorî û ewlekariya Komara Îslanî ya Îranê bi tevahî hatiye mîlîtarîzekirin. Lê hevdem li Kurdistanê û pirr herêmên din hindek grûpên cinayetkar serî hil didin ku ewlehiya civakî û jiyana hevwelatiyên sivîl binpê dikin. Komên ku armanc ji kiryarên wan tenê pêkanîna atmosfera xof, tirs û wehşetê ye di nav civakê de.

Dema ku hevwelatiyên Kurd ên bajarê Bokanê li hemberî vê diyardeyê dest bi nerazîbûna sivîl kirin, hêzên ewlekarî û leşkerî bi xurtî ligel beşdarên meşên sivîl rûbirû hatin. Ji bajarên Urmiye û ên derdor hêz ji bo qirkirin û çavdêrîkirina meşên hevwelatiyan anîn Bokanê. Gellek hevwelatiyên sivîl ên Kurd di van meşên aştiyane de binçavkirin. Heta kesûkarên zarokên kuştî jî girtin û rastî lêpirsînê hatin kirin. Ji bo van tevgeran ew hêzên parêzerên ewlehiya civakê ne, tenê ji ber ku desthilata xwe biparêzin, lê ji bo kontrolkirin û kifşkirina grûpên cinayetkar ku zarokên Bokanê direvînin, tecawuzê bi wan dikin û piştre bi awayekî hovane dixeniqînin, nikarin ti karekê bikin!

Bêhtirî mehekê ye ku jiyana normal û sivîl li bajarê Bokanê tune ye, ji ber ku malbat bê hêvî ne ku zarokên ku şandine dibistanê bi zindî vegere malê! Çend rojan ti hevwelatiyekê ji ber kiryarên vê grûpê newêra zarokên xwe bişînin dibistanan û xwendingeh di bêhnvedanê de bûn.

Dema sazî û dezgehên hikûmetê di rêvebirina erk û berpirsiyariyên xwe de xemsar bin, pirsgirêk û kirîzên wiha serî dil didin. Li Rojhilatê Kurdistanê û navçeyên din ên Îranê her roj em şahidê van cor bûyeran in. Roj li pey rojê diyardeyên civakî xurt dibin û mîna kirîzên metirsîdar derketine holê. Parsatina ewlehiya civakî karê hêzên dewletê ye da ku hevwelatî bikarin jiyanek normal û sivîl bikin. Lê zêde karê hêzên Komara Îslamî ya Îranê berevajî erkên wan in. Bi qasê ku ew li ser kontrolkirin, girtin, binçavkirin û êşandina hevwelatiyan re mijûl in û planan jê re dadirêjin, herî kêm balê didin çareserkirina pirsgirêkên civakî û ewlehiya jiyana sivîl ji bo pêşîgirtin li cinayetên bi vî awayê ku li Bokanê pêk hatin û zarokên bê guneh bûn gorî.

# Niqurçk

## Ehmed Xatemî Bêt? Serkêş ken bila bêt



Ceifer Mubeşirniya

Ehmed Xatemî, Pêşnimêjê Demkî yê Tehranê di nimêja Înê de got: ''Heya rejîma Komara Îslamî li kêleka Beşar Esed be, rejîma wî nahê hiloşandin''.

Eve raste!, eve rasteeeeee sed qurana!!!

Lê ferqa wê tun ye "gayê coti", çi heta rejîma we a Komara dijî mirovan li kêleka Beşûyê qirrikdirêj be rejîma wî bimîne, çi heta rejîma Esed xwe rabigre rejîma we li ser lingan dimîne, çimku hûn cemikek şûm in û we şîrê dêlikekê xweriye û demarên we yek in. Ê çawa dibe ku rejîma Esed bihê hiloşandin û rejîma we a Komara Nemirovan bi tewirdasên xwe didayî serê xelkê bimîne.

Lê bila bo carek din jî bêjim te "gayê coti", "ez wî dikim yê dinya danî", pilîndarê demokrasiyê wusan gela patika "Esed" girtiye, taze tu herî her du çavên wî bigrî û têliya xwe jî danêy ber cihek din, ewê taze bitelife. Vêca tu jî hemû nimêjên Înê destê xwe bilind ke û bike ware waaaaaar, way wê quranê li şilkesera te dayî û tu kirî daaaar, te jêwaye ku xelik wê bêje te, ay hewaaaar? Walla wê bêjin te quzzzzzzilqurt û zehremaaaaar.

## Dîsan gayê cotî bêhn berda!!



## Xamneyî bêt? Bila tenê neyê, Mehmûd jî gel xwe bîne!

Di roja 1'ê Gulanê de kedkarên cîhanê rabûn ser lingan û meşên aştîxwazane û hêmin bi armanca rêzgirtin ji roja xwe a cîhanî birêve birin.

Rejîma Xamneyî jî ne tenê îzin neda tu kedkarekê ji mala xwe derkeve, belkî pîre hêstirê "Kewîra Lot" gote reş û rûtên xwe îzna kedkaran bidin bila biçin deşta jêrday Tehranê ji xwe re bimeşin!!!!!

Walla babo başe, tenê eva mabû, xelkê bibin sehraya hişk û rût, vêca bila Xamneyî xerezanekê destê xwe bigre û bibe sereşiwan û li sergê raweste û Mehmûd jî pê kepê çilmî kopalek kema wî hendek vekirî bibe dûhajo û dangê raweste. Vêca gurzo, kotan, qesab, hirçû û tev tûle û rûtikên ku ji bo vê yekê nabin navan jî li ser danên berdin canê xelkê û "Xamineyî" bêje: Haylo daylo serra berra dê dêêê!!, Mehmûd bêje dê hirçû, dê bigir, dê bikuj, dê bikêş!!! Kedkarên hejar û nedar û bêkar terra û berra bikin belkî bi wî awayî nirxa bêkariyê heya qasekê jêrde bînin.



Çimku eva pîşeyê wan e, neraziyan dikujin û piştre dibêjin ka? Ka nerazî!!! Siyasiyan digrin digujin û dibêjin ka? Ka siyasiyên dijber di welat de hene??!!!!!





# Hilkêş - dakêşa pêwendiyên navbera Tehran – Washington (2)



Ebdulla Hicab

Ew hêviya ku bi mirina Xumeynî re ji bo alîgirên damezirandina pêwendî bi Amerîkayê re peyda bûbû bi destpêka dewra serokkomariya Refsencanî re li sala 1989 hinekê hêz girt. Refsencanî bi nêzikkbûna xwe ya pragmatîst ji bo siyaseta derve, dixwest hem deriyê pêwendiyên dîplomatîk bi ser Rojava de veke û hem bi wê riyê ve abûriya Îranê ku di encama şerê 8 saliyê bi Îraqê re têk çûbû vejîne. Lê rêberê nûye Komara Îslamî, Elî Xameneyî, ji bo nîşandana otorîteya xwe ya bê ev la û ew la bi ser hemû warên jiyan û siyaseta Komara Îslamî de meydana manovrên Refsencanî teng kir.

Lê pêşkevtinên siyasiye herêmê şansek nû dan Refsencanî. Reqîbê serhişke Îranê, Sedam Husên, bi dawî hatina şerê bi Îranê re dubare kete hizra şer û wê carê dîfa xwe kuta Kuwêtê. Havîna sala 1990 î îraqê Kuwêt dagîr kir. DYA dem u dest li hember wê bûyerê helwêst girt û bi awayek aşkere amadekariyên şerek dijwar bi Îraqê re kir. Ew helwêst dikarî derfetek zêrîn bixe destê birêveberên Komara Îslamî ji bo ku deriyê dialoga bi Amerîka re vekin. Lê eniya tundrew li Îranê, berevajî, hewl da ku bi rêjîma Sedam re bikeve têkiliyê û li hember Amerîka, bi Îraqê re bikevin dialogê. Li gor wan aliyên tundrew, Îraqek penc şikestî wê pitir bi xêra Komara Îslamî ba heya têketina hêzên Amerîka bo nava herêmê.

Di wê rewşê de her çend Îran bi awayek fermî li pêvajoya şerê Amerîka bi Îraqê re li sala 1991 bêalî ma, lê vejiyandina pêwendiyên dîplomatîke Îranê bi Îraqê re, bi dilê Amerîkayê nebû. Lewma hewlên Refsencanî ji bo damezirandina pêwendiyan bi Amerîkaye re encamên pêwîst bi dest nexist. Tundrewiyên karbidestên payebilinde rêjîmê di warê siyaseta derve de, bi taybet şiltaxî u ajaweyên Komara Îslamî li Lubnan u Filistînê, astengiyên cidî xistin ser riya pêwendiyên asayî di navbera her du aliyan de.

Sala 1993 serokatiya Amerîka kete destê partiya Demokrat. Serokkomarê nû, Bill Clinton, bi awayekê heman duktrîn di siyaseta derveye Amerîkayê de girte pêş ku Komarîxwazan bineya wê danîbûn. Rola neyêniyê Îranê di pêvajoya aştiya navbera Îsraîl u Filistînê de, pitir karbidestên Washingtonê êşand, lewma Clinton sala 1995 biryar da ku cezayên abûriye ku bi salan bû Amerîkayê danîbû ser Îranê berfirehtir bike û bi taybet pîşesaziya nefta Îranê biguwêşe. Sala 1997 Refsencanî bêy ku bikare ji nû ve pêwendiyan bi Amerîkayê re damezirîne, di demekê de kursiyê serokkomariyê bi cî hêşt ku nerazîbûna xelkê Îranê li hember rêjîmê gîhabû asta teqînê.

Heyva Gulana 1997, Muhemed Xatemî, ku ji ber wadeya reformên siyasî, abûrî û civakî piştgiriya beşeke berçav ji civaka Îranê bi dest anîbû, li ser kursiyê serokkomariya Îranê rûnişt. Xatemî di demek kin de bi eşkere sîgnal dan ku dixwaze bi "xelkê Amerîka" re bikeve dialogê. Çavdêran ev mesaj weke nîşaneya daxwaza Îranê ji bo dialoga rasterast bi Amerîkayê re şirove kirin. Lê berdewamiya siyaseta alozîxulqîne Komara Îslamî li herêmê û di asta cîhanî de, baweriya Amerîkayê bi mesaja Xatemî kêm kir. Ji ber wê hindê Amerîkayê di serî de bersivek erênî neda Xameneyî, lê heyva Adara sala 2000 wezîra derve ya demêye Amerîka Xatûn Madeleine Albright daxwaz kir ku rûpelek nû di pêwendiyên navbera Amerîka u Îranê vebe. Ji bo nîşandana niyeta xwe ya xêrê Albrightê ambargoya li ser hin warên bazirganiya bi Îranê re rakir. 6 heyvan piştre Alberight u wezîrê derveye Îranê Kemal Xerazî, ji bo cara yekê piştî hatine ser kara Komara Îslamî, li New Yorkê bi hev hevdîtin pêk anîn.

Helwêst û kiryarên Komara Îslamî di asta herêmî û cîhanî de pir zû nîşan da ku Îran vebûna deriyên dîplomatîk bi Amerîkayê re ji bo pêşve birina siyaseta xwe ya zêdegav li Rojhilata Navîn, Amerîka Latîn, Afrîqa û komarên bislimane Sovyeta pêşîn bi kar tîne. Bi wan pêgavan re, Sipahê Pasdaran bi awayek berfireh kete bazara reşe bazirganiya çekan u rayilkeyek berfirehe bazirganiya çekan li hemû cîhanê raçand. Bi wan pêgavan re Îranê roketên dûrhavêj û teknolojiya Atomî jî bi dest xist. Ev siyaset li gor berjewendiyên Amerîkayê u hevpeymana wê ya herî nêzîk li cîhanê, Îsraîlê nebû.

11ê September a 2001 gelek pêwendiyên navneteweyî serûbin kirin. Îran dubare kete rojeva siyaseta derve ya Amerîka. Sala 2002, serokkomarê nûye Amerîka George Bushê kur, di germiya şerê bi Al-qaîde re, Îran, Îraq û Koreya Bakûr weke 3 pêpikên şerodiyê bi nav kir. Pêwendiya carna bi dizî û lerzoke her du aliyan dubare kete bin siya ewrek reş u dijberiya eşkereye navbera her du aliyan û pêvajoya dijberî û gefuguran bi cidî destpê kir.

Li hember wê rewşê Îranê jî lez da amadekariyên xwe ji bo rûbirûbûn bi Amerîkayê re. Di demek kin de piştî helwêsta Bush, Îranê bi alîkariya Rûsiyê li Bûşêhr, Netenz û Erakê wizexaneyên Atomî ava kirin û dest avête meyandina Uraniomê. Aloziya navbera her du aliyan derbasî qonaxek nû bû û kete nava hilkêş û dakêşek bê dawî. Sala 2003 Îranê bi Ajansa Navneteweyî ya Enerjiya Amtomî (ANEA) re li hev kir ku deriyên wizexaneyên xwe yên Atomî veke û hemû projeyên xwe yên Atomî bixe bin çavdêriya Ajansê. Sala 2004 Ajansê perde li ser hin warên weşartiye pirojeya Atomiye Îranê hilda û bi wî awayî gumana li ser niyetpakiya Îranê xurt bû. Ji sala 2005 ve Feranse, Alman û Birîtaniya bi awayek çalak ketin dewrê û bi Amerîkayê re ji Îranê xwestin ku siyaseta xwe ya di warê meyandina Uraniomê de bighere. Rûsiya û Çîn pişt re xwe tevî wê gruppe kirin û bi Îranê re ketin dialogê.

Sala 2005 bi destpêkirina serokkomariya Mehmûd Ehmedînijad re, rewş dubare guherî. Serokkomarê nû di hêla siyaseta derve de guhertinek ciddi bi ser siyasetaa Îranê de neanî, lê bi kultûra xwe ya Besîcî, kete duruşmdan û manovrên bê bingeh û bi wê riyê ve dubare bala Amerîka u Îsraîlê kişande ser Komara Îslamî. Li heyva Îlona sala 2005, DYA ragehand ku gumana hindê heye Mehmûd Ehmedînijad heman besîciyê tundrev be ku sala 1979 di girtina Balyozxaneya Amerîka li Tehranê de dest hebû. Wêneya gencek nûgîhayî û bi rêdîn ku pir rengî Emhedînijad dida, li şaşeyên televîzyonên cîhanê derket û dubare her du alî serdevkî be jî li hev azirîn. Di heman demê de Ajansa Navneteweyî ya Enerjiya Amtomî eşkere kir ku Îranê gelek pirojeyên veşartî hene û bi awayek berfireh u bi dizîka zêdetir ji ya ku dibêje Uraniumê dimeyîne. Amerîkayê piştî aşkerabûna wê hewla Îranê, Komara Îslamî bi hindê tawanbar kir ku Rêkkevtina Belavnekirina Çekên Atomî NPT binpê kiriye. Sala 2006 mijara bi serdegirtina leşkerî bi ser navend û dem u dezgehên Atomiye Îranê ji aliyê Amerîka an Îrsailê ve bi germî kete rojevê.

Gulana 2006 bi destpêşxeriya Amerîka, Brîtaniya û Feranse Konseya Ewlekariya Neteweyên Yekgirtî pêşniyarbiryarek ji bo dorpêçên navneteweyî ji bo sekinandina pilanên atomiye Îranê xiste rojevê. Li ser bingeha wê pêşniyarê, di dawiya heman salê de biryarek ji Konseya Ewlekariyê li dijî Îranê derket. Lê piştî demek kin Amerîkayê ragehand ku her çend dorpêçên berfireh danîne ser Îranê, lê amadeye ku bi Îranê re bikeve dialogê.

Ji wê demê ve heya niha çend biryarên din ji aliyê Konseya Ewlekariyê ve li dijî Îranê derketine. Amerîka û Îsraîl carna daxuyaniyê wisan tund didin ku bîna agirê şer lê tê, carna jî wisan helwêstê digrin ku tu wê bêjî ne ba hatiye û ne jî baran bariye. Îranê ji meyandina 3% re asta aşkere ya meyandina Uranioma xwe gîhandiye 20%. Ji 3-4 reaktorên Atomî re, bingehên xwe yên ku di warê atomê de kar dikin gîhandine 7-8 an û piraniya pirojeyên xwe yên stratêjîk derbasî binê çiya û şikevtên asê u qahîm kirine û xwe gîhandiye astekê ku zehmete Amerîka u Îsraîl bi pilanek kurt û sînûrdar bikaribin pirojeyên wê yên atomî bisekinînin.

Wê berdewam be...

# Gotûbêj bi armanca gotûbêjê, yan çareseriyê?



Şehab Xalidî

Şarezayên pirsa navikî a Îranê li ser vê bawerê ne ku dema bas ji gotûbêjên navikî tê kirin, cuda ji wan gotûbêjên fermî û eşkere ku li ser pirsa navikî têne encam dan, hinek gotûbêjên nihênî jî li ser vê pirsa girîng û pirr kêşe li navbera Îran û Amerîka de hene, ku di rastî de her ew gotûbêjên nihênî ne ku berpirsyarên Îsraîlî nîgeran kirine. Yekemîn lêdwana Netanyaho serokwezîrê Îsraîlê piştî bidawîhatina civîna Îstenbolê û tometbarkirina Obama bi dana poanan bi Îranê li ser pirsa navikî, şik û gumanek zaf di nav bîrûraya giştî derheq rastiya hebûna gotûbêjên nihênî li navbera Amrîka û Îranê, ku têde puan ji naliyê Amerîka ve bi rejîma Îranê hatibû dan, pêk anî. Ew nîgeraniya Netanyaho ji aliyê şarezayên vî warî ve ji dîtingehên curbicur ve girîngî pê hate dan, û hate nirxandin. Lê Obama serkomarê Amerîka ragehand ku tu lihevhatinek nepenî û veşartî di navbera me û wan de tunebûye û tehrîmên aborî ên me bi dijî rejîma Îranê vê carê gellek tund û şikênertir bûn.

Lê dema ku bas ji gotûbêjên eşkere di navbera Îran û welatên pênc zêde yek bi taybetî dawî gotûbêjên navikî ku li bajarê Stenbolê pêk hat, tê kirin, em dikarin bêjin ku renge lihevhatin li ser diyarîkirina cih û dema gotûbêjên Bexdayê - ew jî li civînekê de ku li gorî gotina şarezayan, alîkarî û teamol li gel yektir, cihê gefxwarinan girtibû tenê deskewta vê gotûbêjê be, ku ew yek jî vê rastiyê eşkere dike, ku rejîma Îranê gellek şarezayane gotûbêjê tenê bi armanca gotûbêjê encam dide, ne eva ku gotûbêjan bo çareseriya vê pirsa aloz û pirr kêşe bixwaze, ku renge li pêşerojê de her ew pirsa aloz û pirr kêşe, bibe sedema vê ku di cihê vê siyaseta ku bi siyaseta "ne şer ne aştî" li hember rejîma Îranê de hatiye naskirin, siyaseta şer bi dijî rejîma Îranê hilbijêre.

Lê eva ku çima her du aliyan ew gotûbêj ku encama vê tenê lihevhatina li ser diyarîkirina cih û dema civînê bûye, wek civîneke pozetîv nirxandine, vedigere ser du sedemên sereke, ku ya yekemîn ew e ku Komara Îslamiya Îranê dixwaze di vê rewşa pirr xirap a aboriya navxwe a Îranê de, ku bixwe afirandiye, ji aliyekê ve zext û guşara tehrîmên tund ên navnetewî ser xwe hilîne, û di hemen dem de jî cuda ji wergirtina hinek poanan ji Amerîka û welatên rojawayî, hem rewayiyê bo programa navikî a xwe li asta navnetewî de peyda bike, û hem jî bo destveanîna demê,bi armanca domandina programa xwe a navikî, vê xatircemî û xweşbaweriyê di nav welatên 5+1 de pêk bîne, ku wan amadeyiyek tewaw bo domandina gotûbêjên navikî heye.

Duyemîn sedema sereke jî ew e ku welatên Ewropayî jî ji aliyekê ve di nav kirîzeke cîhanî a aborî de dijîn, û daxistina pencereya dîplomasiyê û alozbûna rewşê carê ne di berjewendiya wan de ye, û li Amerîka de jî hilbijartina serkomariyê li pêşê ye û Obama hewcehî bi pêkanîna rewşek aram û dijî şer bo destveanîna dengê xelkê heye, jiber ku derkirina her biryarekê bi dijî Îranê ku şer lê çê be, bê guman bandora xwe wê li ser encama dengdanê hebe.




Di rastî de heke rejîma Îranê bikare li hemberî xatircemkirina Amerîka û Rojawayiyan ji aştîxwazanebûna programa navikî hinek poanên wek mehandina oranyomê bi çiriyek kêm wergire, bê guman ew poan di vî warî de ku rejîm dikare aliyê kêm rewayiyeke navnetewî li warê dosyeya navikî bidestve bîne,û herweha ji wan gefên ku dijî damezravên navikî li holê de ne, kêm bike, ew yek wê deskevtek baş û pozetîv ji bo rejîmê be, lê di rastî de Amerîka û Rojawayî jî daxwaza poanên wek desthilgirtina ji piştevanîkirina girûpên tundrew ên îslamî li herêmê û beşdarînekirina li tepeseriya xelkê nerazî li Sûriyê de ji deshilatdarên rejîmê dikin, ku li gorî vê nasyariya ku me ji vê rejîmê heye, gellek zehmet e ku poaneke weha bide aliyê hember, ji ber ku ew rejîm ne xwe girêdayî wan sozên ku dide dibîne, ne jî bi bê pêkanîna kirîzan dikare bijî.

Domandina wan gotûbêjan xesarkirina demê bi qazancê rejîmekê ye ku dikare bi dana sozên bi direv bi rojawayiyan, programa xwe ya navikî li rasteriya armancên nemirovî û deshilatxwazane ên xwe de ber bi pêşve bibe, her çend ku Obama ragehandiye ku "pencereya dîplomasiyê hêdî hêdî tê daxistin, û dem ji bo bersivdana bi xwastekên navnetewî sînordar e, û heke rejîma Îranê bi dûr ji çavdêrîkirina lêgerên "IAEI" li ser programa we ya navikî berdewam be ew wê bi gemaroyên tund û şikênertir re berbirû be".

---

### "CPJ"ê rapora xwe ya herî nû bilav kir

# Îran çaremîn welatê serkutkarê çapemeniyan li cîhanê de ye

**Li gorî rapora Komîteya Piştevanî ji rojnamevanan, Îran, Sûriye, Koreya Bakûr û çend welatên din jî çûne nav rîzbenda wan welatên ku binpêkarên azadiyê ne.**

Komîteya Piştevaniya ji rojnamenûsan li rapora xwe de cuda ji vê ku Sûriye û Koreya Bakûr wek sebebkarê ne cihgirbûna Jeopolîtîk û navikî daye nasandin, îran car din jî xistiye nav rîza welatên binpêkarê mafê mirovan.

Li rîzbenda vê komîteya navê welatên wek: Êrîtire, Gîneya Ostiwayî,Ozbeistan, Miyanmar, Erebistana Seûdî, Kûba, û Bilarûs tên dîtin.

Her di vê raporê dehatiyr ku hikumetên Îran û Sûriyê û Koreya Bakûr bi awayê herî xirap rojnsmevan tepeser kirine, û Îran li pileya 175'ê de cih digre.

Her di vê derheqê de welatên wek Fenland, Norvêj û Holend şiyane ku pileya herî baş di warê azadiya çapemeniyê de bidest bixin.

Rapora han derheq Îranê dide zanîn ku rejîma Komara Îslamî bi awayekî herî xurt sansorê dimeşîne. Herweha îşare bi binçavkirin, destbiser kirina berfireh a rojnamevanan bi armanca bêdeng krina vê texa çalak û herweha derbelêdana ji kanala gihandina zaniyariyan dike û bi giştî navê 151 rojnamevanan jî wek rojnamevanên girtî di vê raporê de hatiye, ku ji wan girtiyaan 26 kes di girtîgehên Îranê de ne, ku navê Ednan Hesenpûr û Mihemed Sidîq Kebûdwend jî di nav raporê de cih digre.



# Li yeksala borî de 74 kolberên kurd li deverên sînorî de hatine kuştin



**Kempîna navnetewî a Mafê Mirovan ragihand ku di nav yeksala borî de 74 kolberên kurd li ser sînorê Îran bi Turkiyê û Herêma Kurdistanê hatine kuştin û 76 kolberên din jî birîndar bûne.**

Hadî Qaimî, berdevkê Kempîna Navnetewî a Mafê Mirovan li Îranê ragihandiye ku kuştina berdewam ya kolberên kurd ji aliyê hêzên ewlekariya Îranê ve, nayê qebûlkirin û pêwist e Hikûmeta Îranê di zûtirîn dem de cinayet û tawanên han bide sekinanadin.

Kesê navbirî ev jî gotiye: "Bikaranîna çek li hemberê kolberan ku tenê ji bo îdareya jiyana xwe eşya ji sinor derbas dikin, binpêkirina qanûnên navneteweyî ye û pêwîst e di vî warî de lêkolîn bên kirin".

Kempînê wê jî radigihîne ku renge rêjeya rastîn a kuştî û birîndaran ji vê zêdetir be, lê ji ber sirûştiya navçeyê ya taybetî ya sînorên Kurdistanê, zanyarî negihiştine destê me.

Ji bilî êrîşa hêzên sînorî ên Komara Îslamî li ser kolberan, her sal çendîn kolberên kurd ji ber sebebê serma û sexletê yan teqîna mayînan, li çiyayên ser sînor ên Kurdistanê cane xwe ji dest didin.

Ji hêla din ve jî Ehmed Şehîd, raportorê taybetî yê NY ji bo mafên mirov li Îranê, di rapora xwe de îşare bi zulm û fişara Îranê li ser kolberên kurd kiriye û nîgeraniya xwe ji kuştina sîstematîk a kolberan ji hêla rejîmê ve nîşan daye. Pêka yasya Îranê dive ew kasibkar û kolber li weha egerekê de tenê bi cezayên madî û çend meh girtinê bên cezadan, lê hêzên sînorî îzna destrêjî û gule barandina li ser wan hene û her sal bi dehan kes ji wan dikujin û bi sedanan jî birîndar dikin, herweha hesp û dewarên wan jî dikujin û barên wan jî zewt dikin.

# Hêzên Ewlehiyê ên rejîma Îranê êrîşî ser kedkarên bajarê Sine kirin

**kedkarên perêzgeha Sinê ku di roja cîhaiya kedkaran de lihev civiyabûn, digel êrîşa hêzên ewlehiyê ên rejîmê berbirû bûn.**

Yek ji xebetkarên kedkarî li bajarê Sinê ragehand ku daxwaza me ya ji bo birêvebirina meşa kedkarî ji aliyê karbidestên Komara Îslamî ve nehat pejirandin, lewra kedkarên vî bajarî digel malbatên xwe li ser yek ji şeqamên bajar kom bûn, lê ketin ber gaza rondikrêj û batûman û erîşa hêzên ewlehiya rejîmê. Di encama êrîşê de pênc kes hatine dasteser kirin.

# Gelaleya kêmkirina temenê zewaca keçan û sêksa dawîn bi hevjîna mirî re, li Misrê de bûye pirsgirêk

**Pêka nûçegihaniya ''shahrzad news''ê, nîqaşa li ser du gelaleyên yasayî ku ji aliyê Îslamiyan ve bona dengdanê bo parlementoya Mîsrê hatine şandin, kêşeyek mezin afirandiye.**

Yek ji wan gelaleyên yasayî li ser kêmkirina temenê zewaca keçan ji 16 salî bo 14 saliyê ye, û gelaleyek din vê îznê dide mêran ku di gel jina xwe ya koçkirî heya şeş demjimêran piştî mirinê sêksa xatirxastinê bike.

Li gorî rapora Şût newes her du gelale jî bûne sedema vê ku li civaka Mîsrê de pêk hatiye û bi taybetî bûye sedema nerazîbûna girûpên çalak ên mafê mirovan.

Ew yasa li ser bingeha dersên ruhaniyê Merakişî wate Zemzemî Ebdol Barî, ketine ber bas. Bîr û hizrên wî gellek caran bûne sedema kêşeyan, bi taybetî vexwarinên Elkolî , bo jinên pê giran. Bi raya wî ruhaniyê Merakişî zewac bi mirinê bidawî nabe, û jin û mêran mafê vê hindê hene bi jina xwe ya mirî re jî karê cinsî bikin.

## Rojev



# Êrîşa ser Îranê, senaryoya herî bilez û berdest a Pintagonê

**Ji Farsî: Agirî**

Rojnameya Waşîngton Taymzê li hejmara xwe ya du rojan berî niha de nivîsek weşand ku têde eşkere dike artêşa Amerîka mijûlê nirxandin û guhertina pilanên xwe ên şerr, hevterîb li gel nexşerê û rênimayî ên leşkerî ên pênasekirî ji aliyê serkomarê Amerîkayê ye. Li gor vê rojnameyê, amadegî û xweberhev kirin ji bo operasiyonek leşkirî li dijî Îranê, ji senaryoyên herî berdest û bilez ên wezareta Berevaniya Amerîkayê tê hesibandin.

Rojnameya han ji zarê çavkaniyên haydar dide zanîn ku artêşa Amerîkayê li ser vê bawerê ye ku dikare li midehê kêmtir ji sê heftiyan de ji riya êrîşên esmanî û deryayî ve hêzên leşkirî ên Îranê jinav bibe. Mifah standin ji vebijêrkek weha, reaksiyon û dijkiryarek dibe bi êrîşa Komara Îslamî bo ser gemiyên Amerîkayî yan navnetewî li Xelîcê yan jî hewlek rejîmê bona daxistina gewrî û tengava Hurmuzê ku ji riya wê ve pênc yeka çavkaniyên neftî ên cîhanê ji bo bazarên navnetewî tê veguhastin.

Waşîngton Taymzê zêde kiriye ku Amerîka bi awayek gav bi gav hêzên leşkirî ên xwe li Xelîcê de bihêz dike. Amerîkayê du gemiyên şerr ên xwe (Abraham Lînkoln û Întir Pirayz) li xelîcê de cihgîr kirine û herweha bi hejmara gemiyên Mayîn mandel ker û balafirên xwe jî her ku diçe zêdetir dike.

Heftiya derbasbûyî jî çavkaniyên leşkirî li Amerîkayê de eşkere kirin ku wî welatî hejmarek ji balafirên herî pêşketî û modern ên xwe ji corê F-22 li Îmaratê de cihgîr kirine. Serheng Taylêr, berdevkê fermanderiya artêşa Amerîkayê li deverê de ragihandiye ku: Herçiqas ku êrîşa leşkirî li dijî Îranê li destûr kara artêşa Amerîkayê de nine, lê hêzên nîzamî ên Amerîkayê li jêr fermana Pintagon û Koşka Sipî de amadeyê ber bi rû bûna bi her egerekê li deverê de ne.

Waşîngton Taymz her weha dinivîse ku artêşa Amerîkayê dê li hemberî egera dagîrkirina Koreya Başûr ji aliyê Koreya Bakûr ve wê ji hêza esmanî û gemiyên şerr ên xwe li deverê de mifahê bistîne û ber bi rû bûna erdî jî wê bixe stûyê hêzên Koreya Bakûr.

Li nexşe riya leşkirî a Amerîkayê demifahstandin ji hêza erdî di şerrên giran û mezin de pêgehek taybetî heye. Lewma niha şûn de Artêşa Amerîkayê dê ji hevalbendên xwe bixwaze ku encama operasiyonên erdî bigrin stûyê xwe, li halekê de ku hêzên esmanî û deryayî ên Amerîkayê wê êrîşên hevpar dê bişopînin û serperistî bikin.

Li gor rojnameya Waşîngton Taymzê, serkomarê Amerîkayê li Januariya derbasbûyî de nexşeriya leşkirî a Amerîkayê li Xelîc û iqyanûsa Aram de li 8 rûpelan de xistiye ber destê arteşê. Ew nexşerê tekez li ser mifahstandin ji yekîneyên biçûk û bilez ên hêza esmanî û deryayî a Amerîkayê dike.

# Roja Cîhanî a kedkaran û rewşa wan di Îranê de



Arif Velzî

Di despêka meha May a sala 1886 an de, kedkarên Amerîkayê seba Xirabiya rewşa kar û herweha daxwaza avakirina binyad û yekîtiyên kirêkarî di welatê xwe de, xwenîşandanek berfireh rêxistin ku pêlên wê seranserê Amerîkayê xiste bin bandora xwe. Di roja çarem a xwenîşandanê de, polîsê Amerîkayê li bajarê Şîkago yê ku nêzîk bi 90 Hezar kes têde beşdar bûn, destrêjî kir ser xelkê nerazî û di encam de gelek kuştî û birîndar lê ketin û herweha çend kes ji rêberên xwenîşanderan jî, ji aliyê Dadgeha Amerîkayê bi cezayê îdamê hatin mehkûm kirin. Piştî derbasbûna sê salan bi ser wê bûyerê de, wate di sala 1889an de, û li ser daxwaz û pêşniyara nûnerên kirêkarên Amerîkayê, Kongireya Navnetewî li Parîsê, despêka meha May, wate 12ê Meha Banemerê weke roja kedkarên cîhanê hilbijartin. Piştî biryara Kongireya Navnetewî, di gelek welatên cîhanê de, salvegera bûyera Şîkagoyê tê bîranîn.

Di reweşek weha da ku li piraniya welatên cîhanê û ji aliyê hemû rêxistin û binyadên kirêkarî ve, hewil tê dan ku jiyana kedkaran weke texa herî zehmetkêş ya civakê bihê başkirin, berpirsyarê Maliye kedkarên Îranê ragehand ku tenê di sala derbasbûyî de, 100 hezar kirêkar di yekîneyên berhemanînê de, li ser kar hatine avêtin û bi vê çendê jî jiyana wan ber bi reweşek aloztir û nediyar ve diçe. Navbirî nirxa bêkariya jinan di Îranê de, du hemberî mêran da zanîn. Eve jî dibe sebeb ku jin bikewin bin bandora diyardeyên xirab ên civakî, yan jî bi tenê mijûlî karûbarên malbat û xwedî kirina zarokan bin.

Serbarê helawsan û giraniya bazarên Îranê gelek gefên din weke nebûna asayîşa karî, kar kirina qerardadî, paremana heqdestan, nebûna bîmeya kar û …., Jiyana kirêkaran xistiye bin bandora xwe.

Yekî din ji arîşeyên kirêkaran di Îranê de ku dibe sebeba xirab bûna jiyan û binpêkirina mafên herî despêkî ên wan, nebûna sazî û rêxistn û binyadên taybet bi kedkaran in, da ku bikarin di bin siya wan rêxistinan de berevaniyê ji











mafên xwe ên binpêkirî bikin. Herçend ku eva vedigere ser kirîza azadiyên siyasî û medenî di hûndûr welat de ku di bin siya siyasetên dijî mirovî ên Komara Îslamî de hatine pêpeskirin. Lewma çalak û xebatkarên kirêkarî di Îranê de hertim digel girtin û işkence û bigre îdamê jî berbirû ne.

Serbarê ev hemû asteng û arîşeyên ku li ser rêya jiyana kirêkaran di Îranê de heye, diyardeyên nigetîv ên civakî weke leşfiroşî, bengdarî, bêparbûn ji xwendinê, bêhîvî bûn ji jiyan û pêşerojê, givaşa ser qata kirêkar zêdetir dike.

Hêla hejariyê di sala 1391an de, 1 Milyon û 400 Hezar Tûmen û hêla hejariya bi xurt jî 700 Hezar tûmen ji aliyê karbidestên Komara Îslamî ve hatiye diyarî kirin. Herweha destheqê kirêkaran jî di sala 1391an de, 390 hezar Tûmen hatiye diyarî kirin. Lewma ev jî weke belgeyek bihêz diselimîne ku kirêkar di Îranê de, li nêzîk hêla mirinê jiyana xwe derbas dikin.

Di heyamê pitir ji 30 sal temenê Komara Îslamî de, em dibînin ku roj bi roj jiyana xelkê Îranê bigiştî û kirêkar bi taybetî, serbarê wê ku Îran 5mîn welatê dewlemend û xwedî petrol û çavkaniyên xwezayî ên bin erdê di cîhanê de ye xiraptir dibe, ew jî wedigere ser vê yekê ku beşek ji dahata petrola Îranê ji rêya çêkirina çekên navikî û herweha piştewanî kirin ji rêxistinên Hizbula li Lubnanê, girûpên Şîe li Îraqê, Hemas li Felestînê û karûbarên terorîstî di cîhanê de tê mezaxtin.

# Di pêşvebirina zimanekî yekgirtî de rola medyayê

Hewar

Danîna programên bi zimanê Kurdî li Radyoya Bexda, Rewan û Kirmanşayê karî aliyê kêm valahiyeke her çend kêm jî di warê parastina wêjeya Kurdî de tije bike.

Programên wek deng û bas, helbest û mûsîqî, stranên daxwazkirî, xwendina namên guhdaran, fulklor û şanoyên radyoyî xalên hewbeşe wan sê radyoyan bû.

Herçend ku ew radyo ser bi dewletên wan welatan, yanî Îran, Îraq û Ermenistanê bûn û siyastên wan dewletan dimeşandin û li gor berjewendiya wan bername bilaw dikirin, lê dîsa jî li dema xwe de, ji bo hevgirtina gelê Kurd û nêzîkbûna zaravên curbicur bandora xwe ya sereke henû. Em niha dibînin dehan kanalên televîzyonî û îzgehên radyoyî şev û roj bernaman bi Kurdî bilav dikin û bi milyonan temaşevan û guhdar hene. Bi dîtin û bihîstina wan bernaman çand, huner, edebiyat û zargotina Kurdî digihîje guhê gel li herderî. Ew yek rê ji bo çêbûna zimanekî yekgirtî li pêşerojê de vedike. Pêlên medyayan sînorên heyî di navbera gel da ji nav radike û gel digehîne yektir.

Ez hewce dizanim ku rola medyayê li Rojhelatê Kurdistanê de şirove bikim, da ku girîngiya wê ji bo perwerdeyî û yekgirtina zaravan kifş bibe. Yekemîn car li Îranê, di sala 1959'an de Radyoya Tehranê 15 deqeyan program bi zuimanê Kurdî jî weşand. Ew program ku ji du zaravên Soranî û Kirmancî pêk dihat, tenê nûçe û şirovên siyasî bi xwe ve digirt. Lê berî wê, radyoya Kurdî ya Rewanê, (Yerîvanê) li paytextê Ermenistanê li sala 1950'î de programên Kurdî bilav dikirin. Hevdem radyoya Bexdayê jî mijûlî bilavkirina programên Kurd, lê di çarçoveya berjewendiyên xwe yê siyasî de bû. Wê demê deshilatdarên Îranê jî bona ku propagenda xwe li dij dewleta wê demê li Bexdayê bihêz bike, û deshelata xwe li kurdistanê berfirehtir bike, di sala 1963'an de Îzgehekî Kurdî li bajarê Kirmanşanê damezrandin. Bernamên radyoya Kirmanşanê jî bi du zarên Kurmancî û Soranî bûn, lê carna bi Hewramî û Kirmaşanî jî stran dinav hindek programên taybetî de dihatine bilavkirin.

Her wê demê, li bajêrê Meşheda navenda Xurasanê de, programeke radyoyî ji bo Kurmancên wê deverê hate avakirin, ku pêlên wê digihîştne guhê bi milyonan Kurdî.

Programên Kurdî sal bi sal zêde dibûn, û şeş sala şûnde yanî sala 1969'an li bajarê Urmiyê îzgeyek Kurdî bi zarê Kurmancî dest bikar bû. Ji taybetmendiyên radyoya Urmiyê pêkanîna deste û girûpa mozîkê, qeydkirina stranan, gazîkirina stranbêjan li derveyî Îranê, yên weku rehmetî Ewdî li bakûrê kurdistanê, û qeydkirin û bilavkirina dengê wan bû. Tişta balkêş ya radyoya Kurdî ya Urmiyê beşdarkirina karmendên jin bona belavkirina bernaman û bangkirina stranbêjên jin, û qeydkirina dengê wan e. Wê demê belavbûna dengê jinan li ser radyoyê û heta karmendbûna wan, li cem malbatê û di nav civakê de, cihê şermê bû. Piştîvanî û perwerdekirina jinan, herwisa birina wan bo ser kar û xebatên îdarî û civakî girîngiya xwe heye.

Herweha li bajarên din yên Rojhelatê Kurdistanê ji wan li Mehabad û Sine radyoyên Kurdî hatin avakirin. Ez bixwe wek karmendê bernamên Kurdî, ku nêzî 30 salî li medyayên Kirmanşan,Tewrêz,Urmiye û Tehranê de xebitîme (1973-2003), rola wan medyayan di pêşvebirina ziman û parastina çand û hunera Kurdî de gelek girîng û jêhatî dizanim. Di vê serdemê de ku xwandin û nivîsîna bi Kurdî qedexe bû, radyoyên Kurdî weku xwandingeh û zanistgehan têne hesibandin.

Hebûna çîrokan û şanoyên radyoyî, beyt û fulklura Kurdî, stran û mozîkê, dibû sedema yekbûyîn û yekgirtina gel ji aliyekê û ji aliyek din ve, dibû hegera li hew nêzîkbûna zarave û devokên Kurdî, bi vî awayî rê ji bo çêbûna zimanekî yekgirtî divebû.

Pê zêdebûna madyayên Kurdî, herwusa kovar û rojname û belavokên Kurdî bi zaravên curbicur, nêzîktirbûn zaraveyan baştir bûye, û çêbûna zimanê standard, hêsan û sanahî dike. Herçendku çêkirina zimanekî yekgirtî demek dirêj pê divêt, û grêdayî bi rewşa ramyarî û cî û zemanê xwe ye, lê dîsa jî peywendên navber medya, Enstîto, û çapemeniyên Kurda dikare gavekî bilind be ji bo bicih hatina vê armancê.

Di vê navberê de rola konferans û fistîvalan jî nabe mirov berçav negire, konferansên li ser ziman û çand û hunera Kurdî têne lidarxistin, valahiyên heyî navbera zaraveyan û çanda gel de ji nav dibe, û hesta yekdilî û yekzimaniyê dêxe nav dilê gel de.

Deskewta karê medya û çapemeniyên Kurdî perwerdekirina nivîkar, helbestvan û hunermendan ji aliyekê ve, û ji aliyê din ve zindîkirina pênasa gel yanî zimanê wî ye.

**Gelik mirovên mezin ji bo armancên mezin û bo xizmet bi mirovahî û serbestiya gelan canê xwe gorî kirine û heta heta di nav dilê evîndar û rêvîngên riya xwe de dimînin. Hin mirovên din jî di jîna serbilindane û bi ked û xebata xwe ya pîroz tiştek ji wan şehîd û sembolan kêmtir ninin; çimku wan j xweşiyên jiyanê ji xwe herimandine û temenê xwe kirine goriyê vê riya pirr buha. Ji wan "Yûsif Kenanî" naskirî bi "Mam Yûsif" û "Gulê Îbrahîmî" naskirî bi "Bace Gulê" du xebatkarên dêrîn ên PDK Îranê ne.**

Kewêzer

Yûsif Kenanî naskirî bi "Mam Yûsif" pêşmergeyekî dêrîn û xebatkarek bi bîr û bawer e kutemenek 75 salî derbas kiriye û pêtirî 30 salan e di refên PDK Îranê de bo çirkeyek jî dest ji kar û xebata xwe bernedaye.

Mam Yûsif, mirovekî xweşbêj, henekbaz, xwîn şirîn û hezkiriyê hevalan û di heman dem de bi îman, wêrek û dil soj e.

Mam Yûsif ku li gundê "Geklên"a ser bi devera "Jawaro" a bajarê "Sine" ji dayîk bûye; dibêje: Dema ku min bi çavên xwe didît eskerên Îranê dihatin xelik azar didan û li ber çavên malbat û zarok û mêran jin dixistin bin pêlawên xwe, wijdana min dihejiya û çokên min dilerizîn. Min digot tu bêjî riyek nebe ku em bikarin jin û zarokên xwe li ber dest û pêyên wan xwînmij û ne mirova rizgar bikin?

Mam Yûsif axaftina xwe domand û got: Ez pirr hizirîm, aqîbet min biryar stand. Min tevî xwe soz da ku bêdeng nebim. Min dît ku tiştek û riyek ji bilî beşdarîkirin di xebata ku PDK Îranê birê xistiye baştir tune ku em bigîjin wê armanca xwe, vêca bi saxî yan jî bi mirina min be, ne girîng e.

Lewra min di destpêka şoreşa 1379'an a gelên Îranê pêwendî bi PDK Îranê ve girt.

Piştî wan êrîşên giran ên rejîmê ku li ser gundên Gelên, Niyer ûTengîserê li devera Jawaroya Sinêhatun kirin û tirajîdî afirandin, min biryar sitand ku tevlî refên pêşmergan bibim, û ez bi fermî bûm pêşmergeyê PDK Îranê.

Ez heyamekê li Nawenda 1'a Kurdistanê mam û li wir di bûyerekê de min çavek xwe ji dest da û êdî min nekarî bi hêza pêşmerge re biçim hundirî welat.

Ez li binekyên partiyê mam û her karek bi min disipartin, min bi dilek vekirî encam dida.

Wê demê partiyê ji bo bijîva jiyana pêşmergan pez û malat xwedî dikir, daxwaz ji min kirin ku ez bibim şiwanê pez, min ew jî pejirand û min bi salan ji pêşmergan re pezdarî û şivanî kiriye.

Rojekê baranek dijwar dibarî ûez li ber pez bûm, ne nanê min mabû ne jî cigare, min pez berbi miqeran ve ajot, min dît ku kesek bi pêlawên dirêj "çekme" an di baranê de dibeze. Min gazî kir, lê bersiva min neda, hema min jî axaftinek nebaş jêre got û min gotê

## Min bi salan ji pêşmergan re şivanî kiriye



hoooy!!!ka cigareyekê bide min, ez westiyayî, birsî û tênî me;lê wî gavên xwe xurttir avêtin û ji min derbas bû û çû. Demek pêçû kesek bi navê "Ehmed" hat û çend cixare ji min re anîn û got ha keremke ez dizanim ku tu bê cigare mayî, min jê pirsî tu çawa di zanî? got min wa hîs kir.

Piştî heyamek zaf, rojekê Ehmed hat bal min û got ew kesê ku di roja baranê de dijûn jêre dabûn, ew "Dr. Qasimlo" bû! Û keremkir ku ez wan cigareyan jitere bînim, lê daxwaz kir ku nebêjê "Qasimlo" ew cigare jêre şandine, ji ber ku ger ez çûbam bal wî û ez nasûbam, dê şerm bikira lewma baş bû ne ez naskirim û nejî bila bizane ku ez bûme.

Mam Yûsif piştî vegerandina wê serpêhatiya xwe a bi Dr. Qasimlo re, nekarî xwe kuntrol bike û gelek rondik barandin û demekê jî bêdeng ma û piştre got: "Ew maba ez tucar pîr nedibûm".

Cara duyem jî dengê "Mam Yûsif" hat guhertin û car din giriya û axînek kûr hilkişand û got ax "Dr. Şerefkendî!!!

Vêca ji bo "Mam Yûsif" ez jî bibêjim, ma qey felek ewqas kor û kerr e kederên li ser dilê "Mam Yûsif" jî hîs nake? Gelo çawa xebatek li ser destên tîştîşbûyî û dilên paqij ên wan xebatkaran nagîje armanca ku "Mam Yûsif" 50 sal e çavnihêr e?!

## Ger ew maba, ez tucar pîr nedibûm!



Gulê Îbrahîmî, 45 salî di temenê ciwaniya xwede bûye pêşmergeya PDK Îranê. Ew li gundê "Pirdanan" li devera "Pîranşar"ê li malbatek xebatkar ku bavê wê pêşmergeyê Komara Kurdistanê bûye ji dayîk bûye. Bi gotina wê di temenê zaroktiyê de ji ber ku gundê wan li ser riya hêzên pêşmergan bûye, ji aliyê din ve jî bavê wê xebatkarê kevnar yê PDK Îranê bûye, hertim basên şoreşa Kurdî û xebata PDK Îranê di mala wan de zindî bûye û vê yekê jî bandor li ser "Gulê" çêkiriye ku weke keçek ciwan û nûgiha pêwendî bi PDK Îranê ve bike û bi awayek nepenî hevkariya hêza pêşmerge bike.

Xuşke Gulê heya niha jî nezewiciye û hertim cil û bergên Kurdî ên pêşmergan ji xwe dike.

Ew dibêje: Mixabin di çanda me a Kurdî de bi taybetî 30- 40 salan berî niha xwendin ji keçan re qedexe bû, lewma ez nexwendewar mam, lê min paskên xwe ji hêza zanîn û hestên netewî betal nehişt. Min bi wî awayî dest bi xebata siyasî kir: Ez û çend keçên din ên gund bi hev re heval bûn û me biryar sitand ku em pêwendî bi PDK Îranê ve bigrin. Me ew têkilî çêkir û bi awayên cur bi cur me hevkariya pêşmergan dikir. Bo mînak, pirraniya caran dema ku me dizanî êrîşa hêzên rejîma îslamî a Îranê bo ser pêşmergan birê ketiye, me bi hêceta giya, pancar, bêr û pezdoşîn, û htd, bilez xwe digihand cihê pêşmergan û me ew haydar dikirin û em vedigeriyan. Piştre me akama erênî û bandora wê haydarkirinê piştî şerrek giran didît.

Gulê got: Ji bo ku min karîba pêtir xizmet bi pêşmergan bikim û erkê partiya xwe bigîjînim cih, di gund de me ji xwe re dikanek biçûk ava kir. Tiştên ku di dikana min de dihatin firotin, pirranî hewcehiyên pêşmergan bûn, lê min tucar bi pere tişt nedidan pêşmergan. Hesta min ev bû ku erkê min e ez pêşmergan xwedî bikim, çimku wan di nava dilê min de cih hebûn.

Di gundê me de paygeha dujmin hebû, û serbaz û pasdar dihatin dikana min, min tişt nedidan wan û pirraniya caran dibû hela hela û denge denga min tevî pasdar û serbazan û dilê min qirar nedida tiştên ku min ji pêşmergan re anîne, heta bi pereyekê zaf jî bifroşim pasdaran. Çimku dikana min ne dikana kasibiyê bû, berdilê min miqerek partiyê bû.

## Min mil bi milê pêşmergan di xebata çekdarî di gelik şerrên giran de beşdarî kiriye



Dema ku xebata min pêtir derket holê, guman çêbû û hevalekê ji min re got: "Tu yê bihêy girtin û gerek tu çareyekê ji xwe bikî". Dema ku min dît ew tişt rast e, ez êwarekê reviyam û çum pişta gund di nava daran de min xwe veşart, heya sibê ez hişyar mam, sibê zû turumbêlek dewletî çû ber deriyê me, vêca min zanî êdî ez nikarim vegerim malê.

Ez mam heya êwara din û dinya tarî bû û min xwe gîjand hevala xwe û min xatirê xwe jê xwast û ez birêketim bo nava pêşmergan. Wê rojê ez pirr giriyam, ez pirr xemgîn bûm, min daxwaz ji fermandeyê pêşmergan kir ku min bibin gund, fermande û çend pêşmerge tevî min hatin û em çûn gund û min malbata xwe dît û min bo yekcarî xatirê xwe ji wan xwast.

Wê demê sal 1987 bû û niha 2012'an e û ez berdewam di xebatê de me û min tucar hest bi westiyanê nekiriye.

Di wan 25 salane de heyamê 10 heya 15 salan, ez mil bi milên pêşmergan di xebata çekdarî de bûme û min di gelik şerrên giran de beşdarî kiriye. Niha jî her dema PDK Îranê biryar bide bo xebata çekdarî, ez amade me û ji tu tiştek natirsim.



# Şaristana Şino' yê



Navê bajarê Şinoyê li Kêl û belgeyên dîrokî de, wek Ûşno, Eşne, Eşnonak û Eşîno hatiye nivîsandin ku tê wateyên gelî, giyayê Dovale û Kel.

Li ser kêla Korûşê Hexamenişî Şahê Îrana kevinar bas ji herêmekê bi navê Ûşnonak hatiye kirin, ku yek ji mezintirîn piştîvanên navhatî bûne.



Mecîd Cinîkanlû

Şino yek ji bajarên sînorî yên Parêzgeha Urmiyê li rojhilatê Kurdistanê ye. Şaristana Şinoyê li du bajarên Şino û Nelos û herweha du herêmên bexşa Navendî û bexşa Nelosê pêk tê ku bexşa navendî ji du dêhistanên Şinoya bakûr û Deştebêl, û bexşa Nelosê jî, ji du dêhistanên Şinoya başûr û Hêq, pêk tê ku pitir ji 77 gundan e.

Nifûsa wê Şaristanê li gorî Serhejmêriya sala 1385'an a Rojî 63.798 kes e, ku 32.184 kes Mêr û 31.614 kes Jin in. Pêka serhejmêriya sala 1388'an hejmara giştî, nifûsa wê Şaristanê 99hezar kes e. Navbera navenda Şaristana Şinoyê û Bajarê Urmiyê 70 kîlometir e. Şaristana han ji aliyê bakûr ve tevî Şaristana Urmiyê, li başûr tevî bajarê Nexedê, li rojhilat tevî gola Urmiyê û li rojawa tevî Başûrê Kurdistanê hev sînor e. Hejmara nifûsa bajarê Şinoyê pitir ji 32 hezar kesî ye.

Xelkê herêmê hemû Kurd in û bi du zaravayên Kurmanciya jorîn û jêrîn dipeyvin. Kurdên herêmê hemû musilman in.

Bajarê Şinoyê bajarekî gelek xweş û dilrevîn e, û ev bajar seba hebûna baxên Fîqiyên Gêlasê di Îranê de, bi bajarê Gêlasê hatiye naskirin.

Navê bajarê Şinoyê li Kêl û belgeyên dîrokî de, wek Ûşno, Eşne, Eşnonak û Eşîno hatiye nivîsandin ku tê wateyên gelî, giyayê Dovale û Kel. Li ser kêla Korûşê Hexamenişî Şahê Îrana kevinar bas ji herêmekê bi navê Ûşnonak hatiye kirin, ku yek ji mezintirîn piştîvanên navhatî bûne.

Ji girîngtirîn şûnwarên dîrokî yên bajarê Şinoyê em dikarin îşarê bi Kêla bi nav û deng ya Kêle Şînê bikin ku bilindahiya wê 170 santîmêtr e, û bi 2 zimanê Ûratorî û Aşûrî li ser Kêla han hatiye nivîsandin ku vedigere bo sedsala 8'ê a berê Zayînê. Tê gotin ku ev Kêl 900 Salan pêş Texta Cimşîd bi fermana Îşponya Şahê Ûratoran li bilindahiyên Rojavayê bajarê Şinoyê li Sînorê navbera Başûr û Rojhilatê Kurdistanê hatiye danîn, û herwisa Kêlên Mirina Karwan û Çişme Gol li Mozexaneya Bajarê Tehranê, yên vê herêmê ne.

Li piraniya pirtûkên dîrokî ên bajarê Şinoyê de, wek bajarekî bi Baxat û bedev ku avekî zaf heye, nav ji vî bajarî hatiye birin. Êbn Heqûl li pirtûka xwe ya bi navê Nizhet El Qolûb li sed sala 4'ê a koça Mangî de, bi nivîsîna 11 xetan li ser Şinoyê bas ji xweşî û giringiya wî bajarî dike.

Xelkê herêmê bi giştî mijûlî Çandinî, Ajeldarî û herwisa kasibiya li ser sînor in. Herêma Şinoyê xwediyê gelek erd û zewiyên baş ji bo çandiniyê ye, û yekem cîgareya Îranî bi navê Wîje bi Tûtina wî bajarî hatiye çêkirin.

Li herêmê de pitir ji 5 hezar hektar baxên Sêv, Gîlas, Qeysî, Gîz û...hwd hene, ku Gîlas wek baştirîn fîqiyê li herêmê tê naskirin. Herwisa li herêmê Genim, Nok, Silq, Sêvik û li hin cihan de Birinc jî tê çandin.

Li herêma Şinoyê gelek cihên dîrokî hene ku salane bi hezaran kes ji xelkê Îran û kurdistanê serdana vê herêmê dikin. Hin cihên dîrokî û seyrangehên herêmê navhatî ne ji:

Parka Qelatûk, parka Ferhengiyan, baxên derdora bajêr, geliyê rûbarê Gelazê, seyrangeha Mîrawa, Kêla Kêleşînê, Kela gundê Sînganê.

Herêma Şinoyê gelek kesayetiyên mezin û mamostayên welatperwer hebûne û hene, û gelek kesên mezin ji wî bajarî hilketine.

Mîrza Mehmûd Xetatî, Şêx Seyîd Tacedîn Şinoyî, Hacî Mela Şêx Cesîm Kurdî, Şêx Ehmed Kor û bi dehan kesayetiyên welatperwer ji wî bajarî hilketine, ku hemûyan li rêya azadî û Kurdistaniyê de xebatekî zaf kirine. Li serdemê Komara Kurdistanê li sala 1945'ê li bajarê Mihabadê gelek ji welatparêzên wî bajarî û xortên xebatkarê kurd li wî bajarî beşdarî di refên Pêşmergeyên Komara Kurdistanê de kirin û li riya parastina Komarê de gelek xebat kirin.

Bajarê Şinoyê li cem Kurdên rojhilatê Kurdistanê wek bajarekî pîroz tê mêzekirin. Simayîl Axayê Şikak rêberê şoreşa Kurdan li rojhilatê Kurdistanê li sala 1930'an a zayînî li wî bajarî li bûseyekî hêzên Dewleta wê demê a Îranê de hat Şehîdkirin.

Kurdên Şinoyê li rêya azadiya Kurdistanê de gelekî xebat kirine û di wê rêya Pîroz de gelek xortên xwe yên welatparêz pêşkêşî baregeha azadiya Kurdistanê kirine.

Niha jî xortên xebatkarê wî bajarî li nava partiyên Siyasî yên Neteweya xwe de, bi awayekî gelek çalak mijûlî berxwedanê ne, û jibo rizgariya kurdistanê li dana tu nirxekê xwe naparêzin, lewra li cem xelkê rojhilatê kurdistanê bajarê Şinoyê wek bajarê Şinoya Dilsoz hatiye naskirin.



Şahzade Nayif Erebistanî:

**"Erebistana Seûdî û endamên Şêvra alîkariya Kendavê li ser yek hêl û yekparçe di gel Behrînê sekinîne, û deshilatdarî û çarçoveya erzî a Îmaratên yekgirtî ên Erebî beşek ji ewlehiya kendavê ye".**


Omer Xulamelî, endamê Komîteya Navendî yê PDKÎ

Rêzdar Omer Xolamelî endamê Komîteya Navendî a PDKÎ axavtina Şahzade Nayif Erebistanî weha şirove dike:

"Di rastî de siyaseta komara Îslamiya Îranê di wartê xwe sepandina bi ser geklên Îranê û herweha welatên cînar de jî bûye sedema vê ku ew welatên Erebî li hemberî siyasetên rejîma Îranê û

Îdeolojiya vê rejîmê de kêşeyên xwe çareser bikin û li hemberî rejîma Îranê de yek helwest bisekinin. Herçend ew kêşeya li ser her sê giravan ne kêşeyek nû ye, lê di rastî de her ew siyasetên rejîmê ên ne durus û tevdanîkarane bûne sedem ku welatên Erebî bi hestyariyek zêdetir ve, vê pirsê bişopînin û bas ji xwedîtiyê wan giravan bikin".



Ehedollah Darabî nûnerê parêzgarê Kurdistanê:

**"heke bona pêşîgirtina ji qaçaxa kalayan li ser sînoran hêzên Întizamî deh beramber jî bêne zêdekirin, lê malbat her bi vî awayî bêkar bin, mirov nikare ku daxwaza dest hilgirtina karê qaçax ji wan bike. Divêt di warê aborî de pirsgirêk werin çareserkirin, û malbatên hewcedar li gor jiyanek normal dahat hebin da ku dest ji karê qaçax hilgirin".**

Rêzdar Omer Xolamelî axavtina nûnerê parêzgarê Kurdistanê jî weha şirove kir:

"Di rastî de ew gotina nûnerê parêzgarê Kurdistanê li Îranê de ne afirandinek nû û ne jî axavtinek nû ye, rejîmek ku bixwe çavkaniya pêkanîna bêkariyê di Kurdistanê de ye bixwe baş dizane ku ji vê bêkariya xelkê Kurdistanê çi mifayekê wergire.di rastî de ne tenê li parêzgeha Kurdistanê belku li tewaya Kurdistana Îranê de ew qas kargeh û karxane û binyat tuninin ku têra xelkê Kurdistanê ên bê kar bike.

Bêkarî û rû kirina xelkê Kurdistanê ji bilî karê li ser sînoran bo başûr û nawenda Îranê ew qas rohn û berçav e ku heta nûnerê parêzgarê Kurdistanê û heta serkomar bixwe jî nikare haşayê lê bike.

Ji aliyek din ve berevajiyê têgihîştina nûnerê parêzgarê Kurdistanê kolberî bi armanca peydakirina bijêwa jiyanek şerafetmendane û li rûyê neçarî ve, di tu qamûsekê de karê qaçaxçîtiyê nine, belkû hewildane bo jiyaneke serfirazane û rejîm rojane bi gulleyan bersiva vê karê wan dide ku bixwe navê qaçax li ser daniye. Ya ku ji xelkê Kurdistanê re niha qaçax e, di rastî asayiş û ewlehî, avedanî û kar e".



**Star Hidayetxah, nûnerê parlementoya Komara Îslamî:**

**"Bi baweriya min bê hicabî û belavkirina hizrên nedrust pîlana dawî ya dujminên Nizama Komara Îslamî ye û zirara wê ji ya madeyên narkotîk jî zêdetir e. Herweha xuyakirina pirça jinan û tiraşîna rêdîna mêran li gor fetwaya şarezayên babetên şer'î heram e.**



Birêz Omer Xolamelî şiroveya wî li ser axavtina Hidayetxah jî weha bû:

"Di rastî de kes tuneye ku nasyar nebe di gel wan hemû kirîzên siyasî, civakî û aborî ku li jêr sîbera hikumeta "Rical" ya wî de, berok û pêsîra xelkê Îranê girtiye.

Her ew dîtingeh û bîr û hizrên paşvemayî û li gorî sedsala navîn in ku li sedsala 21'an de pilana birêvebirina civakê dadirêjin, û riya pêşkevtina civakê li çarşîw û rêdîna dirêj ya mêran de dibînin, lewra em bi awayek ber bi çav şahidê diyarokên wek Îtiyad, Fehşa, qetil û cînayetan li jêr sîbera vê rejîmê de ne. Eva ku bas ji zirara madeyên bêhişker di nav civakê de dike, hewce ye em bêjin ku her di vî warî de jî ew bi xwe sebebkarê belav kirina madeyên hişber li nav civakê de ne û bo xapandina xelkê û berxwar kirina raya giştî û rastiyan bas ji zirarên wan madeyan dikin''.



# Agirî

**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye**
**Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

**www.kurdistanmedia.com/kurdi**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
**AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE**
**E - Mail: agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com**






Urmiye, devera Mirgewer, gundê Jarava

## Zirarên bêhicabiyê ji zirarên madeyên hişber zêdetir in!!



**Nûnerê parlemêntoya Komara Îslamî got ku, Zirarên bêhicabiyê ji zirarên madeyên hişber zêdetir in.**

Setar Hidayetxah, Nûnerê bajarên Boyêr Ehmedê û Dinayê got, tiraşîna ridînê heram e û bi baweriya min bê hicabî û belavkirina hizrên nedurust pîlana dawî ya dujminên Nizama Komara Îslamî ye.

Navbirî di doma axaftina xwe de dibêje ku xûyakirina pirça jinan û tiraşîna rêdîna mêran li gor fetwaya şarezayên babetên şer'î heram e!!!

## BDP: "Amerîka pirsgirêka Kurdî baş têgihiştiye"



**Hevseroka BDP'ê Gultan Kişanak da diyarkirin ku Amerîka pirsgirêka Kurdî baş têgihiştiye û fikra xwe ya derbarê pirsgirêka Kurdî de guhartiye.**

Kişanak derbarê serdana şande BDP'ê ya li Amerîka de, ji rojnmeya Radikal re axivî û got ku: hêviya berpirsên Amerîka ji bo demokratîkbûna Tirkiyê heye. Herweha ew ji siyaseta Tirkiyê li dor Sûriyê aciz in. Kişanak da diyarkirin ku Amerîka fikra xwe ya der barê pirsgirêka Kurdî de guhartiye û êdî weke berê pirsa Kurdî bi tundiyê nafikre. Ew PKK'ê jî parçek girîng ji bo çareseriya pirsa Kurdî dibînin ku divê muxateb were dîtin. Amerîka êdî dest bi dîtina hemû wêneyan kiriye.

Kişanak da diyarkirin ku berpirsên Amerîka gotine, daxwazên wan ji Tirkiyê hene pirsa Kurdî bi riya aştiyê çareser bike, daxwazên wan yên demokratîkbûna ji Tirkiyê hene.

## Deh wergirên xelata Nobelê daxwaza azadkirina Nergis Muhemedî kirin



**Kesayetiyên wek Mîxayîl Gorbaçof (Rûsiyê), Dalaylama (Tebet), Mayrid Migwayir (Îrlendî), Rîgobirto Manço Tam (Gowatmala), Cûdî Wîlyamz (Amerîka), Lix Walsa ( Lehistan), Mihemed Yunis (Bengladiş), Saziya Aştiya Navnetewî (Swîs), Damezraweya Albêrt Şiwaytzêr (Amerîka) bi derkirina daxuyaniyekê daxwazA azadkirina Nergis Muhemedî, cihgira Nawenda çalakvanên mafê mirovan û berpirsa Heyeta Birêveberiya Şêvra Netewî a Aştiyê kirin.**

Di beşek ji vê daxuyaniyê de hatiye ku “ Nergis Mohemedî çalakvana mafê mirovan a Îranî li dadgehîkirinek ne dadperwerane bi şeş salan hepsê hate mehkumkirin. Tawana wê endametî û çalakiya li nawenda Çalakvanên mafê mirovan de ye.

Ew nawenda navbirî li sala 2001’an de ji aliyê Şîrîn Îbadî û çend kes ji hevalên wê ve hate avakirin, û serokatiya vê navendê li stûyê Şîrîn Îbadî bû.

